Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 127
20'ê Çileya Paşîn a 2010
Buha: 150 Tûmen

agirî

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

**Pirozbahî**

Bi boneya hatina 2'ê Rêbendanê, 64'mîn Salvegera avabûna Yekemîn Komara Demokratîk a Kurdistanê, em ji aliyê Desteya Weşana Agirî ve Pîrozbahiyê ji gelê kurd di her Çar Parçeyên Kurdistanê de dikin û hêviya bicî hatina armancin bilind ên Komara Kurdistanê di pêşerojek nêzîk de dixwazin.

# Çi Din Rewa Nine Şerê Kurd li dijî Kurd Bihê Kirin



Yekêtiya Zanayên Ayînî yên Kurdistana Îranê (YZAKÎ) û Civaka Aştî û Pêşveçûna Kurdistanê (CAPK) li du daxuyaniyên cuda de, piştewaniya xwe ji gaziya Sekreterê Giştî yê PDK Îranê derheq yekêtiya refên gelê kurd li rewşa niha ya Îranê de dan eyanê. Birêz Mistefa Hicrî, çend rojan berî niha li Tişk Tv de, tevî îşare kirin bi kesên çekdar û xapandî ji aliyê rejîma dîktatorî a Komara Îslamî a Îranê, daxwaz ji wan kesan kir bi her sebebekê ku pişt ji gelê xwe kirine û li çepera dujmin de cî girtine, disan vegerine nav refên gel.

Daxuyaniyên her du rêxistinan, daxwaz ji hemû alî û kesatiyên kurd li Kurdistana Îranê de dike ku piştewaniya vê gaziya Mistefa Hicrî bikin.

Deqa Peyama birêz Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê li ser vê nav û nîşanê bibînin. http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/siyasi/file/243.php

## Goriyên Erdheja Hayîtiyê Gihîşte 200 Hezar kesan

R. 2



## Alman Û Îsraîlê Hişdariya Tehrîmin Zêdetir Dan Rejîma Îranê

R. 2

# Peyama Sersaxiya Deftera Siyasî a PDKI Bo Partiya Pêşkevtinxwaz A Kurd Li Sûriyê

**Endamên rêzdar ên rêberiya Partiya Pêşkevtinxwaz a Kurd li Sûriyê!**
**Silav û hurmetên taybetî!**

Mixabin nûçeya koça dawî a Temer Mistefa, endamê Deftera Siyasî a partiya we gihîşte me. Di vê derbarê de, tevî xem û kovanên jidestdana wî hevalê têkoşer, em behî û sersaxiyê dibêjine endamên rêberiya partiyê, malbata navhatî û hemû endam û alîgirên wê partiyê. Her wiha em xwe di xema we de beşdar û bişirîk dizanin.

Hêvî dikin ku cihê wî biheşta berîn û rêya xebata wî jî, pirr rêvîng be.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**29.10.1388’ê Rojî**
**19.01.2010 a Zayînî**



## Îran Mezintirîn Girtîgeha Rojnamevanan Di Cîhanê De

Roja 6ê Çileya Paşîn a 2010’an, Nûçegihanên Bêsînor bi belavkirina daxuyaniyekê, carek din welatê Îranê bi mezintirîn girtîgeh ji bo nûçegihanan di cîhanê de da zanîn.




Ew saziye ku parêzerê mafê nûçegihanan e û binkeya wê di bajarê Parîsê de ye, di wê daxuyaniyê de ragihand ku di roja 4’ê Çileya Paşîn a 2010’an de Behmen Ehmedî Emûyî bi heft sal û çar meh cezaya girtîgehê mehkûm bûye û herwiha pejrandina biryara şeş sal cezaya girtîgehê bo Ehmed Zeydabadî, Îran carek din bûye mezintirîn girtîgeh ji bo nûçegihanan di cîhanê de, Tê zanîn niha 42 nûçegihanên Îranî di girtîgehê de ne.

Di meha borî de, saziya nûçegihanên Bêsînor di daxuyaniyekê de ragihandin, piştî destpêkirina nerazîbûnê li hember encama hilbijartina Serok Komariyê di Îranê de, di meha Gulana Îsal de, zêdetirî 100 Rojnamevan hatine girtin û herwiha bêtirî 50 Rojnamevan bi neçarî Îran bi cî hiştine.

## Metirsiya Darvekirinê gefê ji 17 Girtiyên Siyasî Ên Kurd dixwe



Nivîsîngeha Komeleya Çalakên Mafên Mirovan li Îranê, nigeraniya xwe li hember metirsiya birêveçûna biryara darvekirina 17 girtiyên siyasî ên Kurd nîşanda.

Li gor wê çavkaniyê heta berî hilbijartina Serkomariya Îranê di meha Gulana 2009’an de, ji 14 girtiyên siyasî ên Kurd ku bi îdamê hatibûn mehkûmkirin, biryara darvekirina du kesan bi navê Enwer Husênpenahî û Erselan Ewliyayî di Dîwana Bilind a Îranê de hat hilweşandin û herwiha biryara îdamkirina Şoreş Mêhdîxanî birêve çû. Lê piştî destpêkirina pêla berfirehe nerazîbûnan di Îranê de, pêvajoya îdamkirina tometbarên siyasî zêde bû û du girtiyên siyasî yên din ên Kurd bi navên Îhsan Fetahiyan û Fesîh Yasemenî hatin darvekirin. Komeleya Mafên Mirovan li Îranê, li ser vê bawerê ye ku rejîma Komara Îslamî a Îranê dixwaze tirs û ne ewlehiyê di herêmên Kurd akincî û herwiha di Îranê de dê zêde bike û rewşeke pir ji nigeranî li hember ewlehaiya canê 17 girtiyên siyasî yên din ên Kurd ku bi Îdamê hatine mehkûmkirin, pêk bîne.

Navên wan 17 girtiyan ku Komeleya Çalakên Mafên Mirovan li Îranê li hember ewlehiya canê wan nigeraniya xwe nîşan daye ev in: Zeyneb Celaliyan, Hebîbula Letîfî, Şêrko Mearifî, Ferhad Wekîlî, Ferzad Kemanger, Elî Heyderiyan, Husên Xizrî, Reşîd Axkendî, Mihemed Emîn Agûşî, Ehmed Puladxanî, Seyîd Samî Husênî, Seyîd Cemal Mihemedî, Rostem Erkiya, Mistefa Selîmî, Enwer Rostemî, Hesen Talî û Îrec Mihemedî.

Hêjayî gotinê ye Komeleya Çalakên Mafên Mirovan li Îranê herwiha rêxistinên din ên Parastina Mafên Mirovan bo pêşgirtin ji sînaryoyekî din a pir ji tundûtûjiya siyasî ku bo darvekirina girtiyên

## Goriyên Erdheja Hayîtiyê Gihîşte 200 Hezar kesan

Çend roj in ku bi ser erdheja Hayîtiyê re derbas dibin, lê hêj radeya kawilkariyên vê bûyerê, nediyar in. Hêj hemû termên miriyan li bin malên herifiyayî de nehatine derxistin. Yên ku sax in jî, metirsiya birsîtiyê gefa mirinê ji wan dixwe. Xelkekî zaf jî dest avêtine talanê.

Li gorî rapora DW, hêza vê erdhejê, 8 beramberî bomba Hîroşîmayê bûye. Pêka serhejmariya rêxistinên navnetewî, karesata han 200 Hezar kuştî li pey re bûye û dawîn serhejmariya dewletê jî bas ji 50 Hezar kuştiyan dike. Amerîka û Ewropayê pêtirîn alîkariyên malî pêşkêşî lê qewmiyên Hayîtiyê kirine.

## Alman Û Îsraîlê Hişdariya Tehrîmin Zêdetir Dan Rejîma Îranê

Serok Almanê, Angêla Mêrkil di hevdîtina bi Serok wezîrê Îrsraîlê Binyamîn Natanyaho de ragihand: Ger Îran helwesta xwe neguherîne, emê hewlê bidin baykotên zêdetir bixin ser Îranê.

Serokwezîrê Îsraîlê jî serbarê daxwaz kirina hisarên zêdetir, da zanîn rejîmek ku niha xelkê xwe tepeser dike, dê sibê zulmê li hemû Cîhanê bike, Rejîmek han nabe çeka etomî hebe.

# Tevgera Kesk û Erkên li Pêşiya Wê



**Mistefa Hicrî**

Piştî meşên nerazîbûna 13ê Xezelwerê û bi taybetî xwenîşandanên roja Aşûrayê ji aliyê Opozîsyonê ve – Tevgera Kesk- li bajarê Tehranê, ev rastiye zêdetir eyan bû ku pêkhateyên vê Opozîsyonê, zêdetir ji wan hêzane pêk hatiye ku li dijî hikûmeta olî ne Ji ber ku di nav wan dirûşmên ku bi taybetî di xwenîşandanên roja Aşûrayê de dihatin qîrandin, dengê siloganên dijî Wilayeta Feqîh, dijî dîktatorî û dirûşmên ku xîmê Rejîma Komara Îslamî dipêka, zêdetir ji siloganên din dihatine bihîstin. Dengên han destpêka rêyekî bitirs ji bo rejîmê û karbidestên wê ên ku destê wan bi xwîna xortên xebatkar ên Îranê sor bûye. Ew dengê yekemîn darbeyên hiloşînê ye ku li cendekê rejîmeke weke ya sedsala navîn tê xistin ku heya heyamekê berî niha bi piştgirêdan bi hêzên serkutker, teyar û her wiha teoriyên cur bi cur ên xwe dixwest vê hukûmeta zalim û dijî mirovî weke hukûmeta Xwedê li ser erdî bide nasandin.

Niha, dîktatoriyê jî ew deng bihîstine û xew jê herimiye, kuştin û qirkirina xelkê bêsûç di meşên nerazîbûnê de, rêzkirina tometên bêbingeh bi ser wan de û derkirina fitwayên yek bi dû yek bi merema cezadana mafxwazên azadîxwaz û helalkirina xwîna wan, nîşaneyên perîşe bûn û gêjbûna wan e.

Lê eva tewahiya çîvanokê nîne, belkî di vê navberê de hemû ew kesên ku serbarê tekezkirina berdewam derheq pîroziya rejîmê, li ser vê bawerê bûn ku kiryara hovane û gendeliya zêde li hedê rayedaran, dê bibe hegera lawazbûn û sistbûna rejîma îdeala wan û bi vî awayî jî bi merema qahîmkirin û nûjenkirina xîmên rejîmê û "vegerandina şemendefirê bo ser rêlên xwe", rexne digirtin, ditirsin, çunku bi eşkere û zelalî dibînin ku rexne û gazindên wan ne tenê nebûne hegera reform û çaksaziyê di rejîmê de û nekarîne jinû ve qahîm bikin, belkî kontrolkirina pêvajoyê di destê wan de nemaye û hêza vê bahoza ku di pêxema guherîna rejîmê de destpêkiriye, ew xistine perawêzê: Lewra ketine hizra pêkhatina tevî rejîmê yan aliyê kêm betal û vala hiştina meydanê, ku neke ew agirê ku peşqel girtiye, xîmên rejîmê ji wan bike bi Xweliya şîn. Gotinên "Mûsewî" di 17'ê mîn ragihandina xwe de û her wiha axavtina "Xatemî" di hevdîtina tevî "Şêwra Navîn a Kora Nûnerên Dewrên Parlemanê" a roja Şemî, 19ê Befranbarê de, mînak û nîşaneyên vê pêkhatinê tevî rejîmê ne, aştî û pêkhatinek ku her di destpêkê de dihate texmînkirin, çunku di dawiyê de û piştî sarbûna wan ji reforma di nava rejîmê de,




bi baweriya wan kesan, Komara Îslamî di berhevdan tevî hukûmeta sekolar û neolî de li pêş e û divêt wekî ku Xatemî dibêje: " hemû berevaniyê ji Komara Îslamî bikin." Meseleyek gellek sade ye, di rejîma Komara Îslamî a Îranê de qata mela û kesên olî ku her di destpêkê de heya niha di avakirina rejîmê heya qahîmkirin û fîdakarî di pêxema wê de ji tu cehdekê xemsarî nekirine û bi hegera ew zehmetên wan di warê qazanc û berjewendiyên takekesî yên xwe de gihîştine bi biheşta hêviyên xwe di cîhanê de, yan ji ber îman û baweriya wan bi rejîma Komara Îslamî û rêvebirina erkên olî ên xwe, xweşî û bexteweriya cîhanek din bo xwe misoger kirine û gihîştine buehşta hêviyên xwe di vê dunyayê de, parastina rejîmê di xerabtirîn rewşa xwe de, bi erkê vê cîhanê û axireta xwe dizanin û tevî tu dengekî nesaz û dijber ku biheştên wan hiloşîn e, pev nakin û li hember de disekinin, yan jî aliyê kêm bi wan re nabin û di vê navberê de jî ew hejmara kêm a wan kesan ku di gel wê yasayê de naguncin, kêm in û tu tiştê ji vê rastiyê kêm nakin.

Ku waye, niha hewcehiya diyarîkirina hin lîder û rêberan ku ji bo tevgera han ki li gor hewce heye hiloşîna rejîmê, ne tenê arasteyek durust ve bibin, bekî xurttir bikin, zêdetir ji derbazbûyî tê sehkirin.

Xurtbûna tevgera kesk û rakişandina hejmarek zaf ji tex û qatên cur bi cur ên xelkê ber bi refên vê tevgerê, bêşik bi yek ji erkên herî pêdvî yên tevgera Kesk tê hesibandin.

Jiberku Komara Îslamî tu baweriyek bi dabînkirina xwastên herî sade yên vê tevgerê nine û heya niha li hember wan daxwazane de penah ji bo tundtirîn tşidetê biriye û wisa tê xuya kirin ku hêj dê vê rijê bidomîne, çunke bi baweriya rejîmê bo çareser kirina astengan tenê yek rê heye, ew jî tepeser kirin e.

Vêdiçe ku xeyala han li wira bo rejîmê çêbibe ku kesên nerazî û dijber hin girûpên ser bi Amerîka, Îsraîl û... in ku tenê di Tehranê de ne û xelkê herêmên dinê yên Îranê û tex û qatên cur bi cur yên din weke bazarî, kedkar û... têde Pişikdarî nekirine û bi vî awayî jî mirov dikare li cihê guhgirtin ji qisên wan, bi tepeser kirinê wan bêdeng û bifetisîne. Ku wisan bû bo nehêlana vê xeyalê, take rê, pêkanîna hevsengiya hêzê di navbera şîpelên bihêzyên piştevaniya tevgerê di seranserê welet de û rakêşana wan tex û qatên civakê ye ku heya niha nekarîne bi kiryar li tevgerê piştîwaniyê bikin, bi awayekê ku rejîm xwe di hember vê hêzê de melûl û bêçare bibîne û tenê di vê rewşê deye ku rejîm - pêka hizra girûpêkê ku niha jî her di hizra çaksaziyê ne – hazir dibe ku bi tevgera azadîxwaziyê re bikeve gotûbêjê bike û puanan bide. Bo gihîş tin bi vê armancê û bi destxistina hêzek han, ne li cih de ye ku ragehandina pirogramek bihêz ji aliyê tevgerê ve û diyarî kirina heyetek ji birêveberiya vê tevgerê nêhe berçav girtin, anku du fakterên giring û berçav ku heye niha tevgera kesek li nebûna wan zirarek mezin jê dîtiye.

Bi merema komkirina vê hêzê, ev bername ye dibe serbarê bi bîr xistina vê zulm û mafxwaziya derheq tex û qatên cur bi cur yên civakê, ji wana netewên zulim jêkî ne fars di Îranê de, mikanîzmên ji holê rakirina wan neheqiyan bi rohnî eşkere bike, çûnkî dema ku xelik dixwazin bi kiryar tevî vê tevgerê bibin, hewceye ku asoya bidestanîna mafên binpêkirî xwe piştî serketina tevgerê bi zelalî bibînin.

Di vî warî de rakêşana hitbara netewên Îranê di pêxema nehêlana vê zulma siyasî ku heya niha ji aliyê rejîmê ve ji wan hatiye kirin û çareser kirina vê zulmê bi hegera avakirina hikûmetekî ne nawendî û Federalî ve di kare rolekî zor serkevtî bilîze, mikanîzmek ku tevî pîvan û rê û cihên demokrasî û yasayên diyar û ceribandiye navneteweyî bi tevahî hevterîb be.

Diyarî kirina şandekî rêberî a xuya, lewma hewce ye ku heya niha weke rêberî bas ji gelek kesan hatiye kirin û hin caran bîr û hizrên wan tevî hev cudan e: Em vê hindê jî lê zêde bikin ku hin alî li derweyî welat ger bi awayekî eşkere jî nebe û bi awayekî netenî jî be, dixwazin xwe bixne refa rêberên tevgerê ku boçûn û ramanê wan jî cudan e. Bi merema nehiştina vê bêser û berî û serlêşêwiyê û derbasbûn ji destê çend nawendên rênîşander û rêberîkirinê, diyarî kirin û ragîhandina vê heyetê û pejrandina berpirsatiyê ji aliyê wan ve û karek hewce ye.

**Çavkanî: Sikirter.org**

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên ”Agirî” re



**Ebdulla Hicab**

# Ji Konferansa Tehranê heya Komara Kurdistanê

Şerê Cîhanî /yê 2’ê, karîgeriya şer li ser Rojhilata Navîn û ew mercên siyasiye ku di salên şer de pêk hatibûn, derfetek pêk anîn ku gelê Kurd li Rojhilata Kurdistanê daxwaziyên xwe yên neteweyî bilind bike. Lê, rewşa cîhanê û bi taybet pîlanên stratejîk yên Yekêtiya Sovyetê di heremê de qedera gelê Kurd û çarenûsa tevgera neteweyî li Kurdistanê guherî. Ji aliyekê ve hebûna du hêzên Hevpeyman bi du siyasetên cuda ve li navçeyên cuda yên Kurdistanê, pêşiya belavbûna mesaja hevbeşa neteweyî li hemû Kurdistanê girt. Ji aliyek din ve derfetek pêk hat ku beriya xwegirtina pirojeya hevbeş a neteweyî li hemû Rojhilata Kurdistanê, di herêmek berteng de yekem Komara Kurdî bê ava kirin.

Belge u peymanên navbera hêzên Hevpeyman u Bûyerên Îran û Rojhilata Kurdistanê di salên navbera 1941-46 de nîşan didin ku qedera siyasiye herêmê tenê li gor daxwaz û bi destê hêzên serdeste demê ve hate diyar kirin. Hêvî û daxwaziyên gelên Îranê û gelê Kurd çi bûn, di lîstokên navneteweiye demê de giring nebûn. Rojhilata Navîn û sîstem û pêkhateyên siyasiye herêmê ji bo rêzbendiyên stratêjîk yên piştî şer û ji bo parastina çavkaniyên enerjiyê gelek giring bûn. Lewma qurbanî kirina daxwaziyên gelan, û li wê navberê de qedera gelê Kurd ji bo parastina berjewendiyên stratêjîkên serehêzên demê pir rahet bû.

Salên şer, hêzên serdeste demê, Alman, Ingilistan, Rûsiye û Amerîka di heman demê de ku li bakûrê Ewrûpayê bi şer û aloziyên dijwar re rû bi rû bûn, lê bi cih kirina şûnpiyên xwe li Rojhilata Navîn jî ji bîr nekirin. Her ji rojên destpêka şerê cîhaniye 2’mîn re, Alman bi riya muhendis û pisporên xwe yên pîşesaziyê ku li Îranê damezirî bûn, çavdêriya rewşa siyasiye Îranê dikir. Rûsiye û Ingilîs bi riya hêzên xwe yên çekdar her dema bixwestana dikarîn bikevin Îranê. Lê di destpêkê de tu aliyan bi pêwîst nedidît ku bi awayek raste rast bikevin Îranê yan destê xwe bavên nava karên hundirîne welat.

çGuhertina rewşê di eniyên şerê Ewrûpa de, qedera Îranê jî guherî. Bêalî bûna Îranê di şer de nehate parastin, ji ber ku Riza şah bi gotina Hevpeymanan nekir û muhendis û pisporên Almanî ji Îranê dernexist, Sovyetê û Ingilîs di meha Tebaxa sala 1941 de Îran dagîr kirin. Hêzên Îranê li tu deveran berxwe nedan û Hevpeymanan piştî dagîrkirina paytext, Riza şah ji welat dûrxistin û kurê wî yê genc, Muhemed Riza, bi deselatek sinûrdar, danîn ser textê paşatiyê. Sala 1942, Amerîka jî hêzek şande alîkariya Hevpeymanên xwe. Bi wê yekê re, bi yekcarî kontrola Îranê û siyaseta welat kete destê hêzên Hevpeyman ku di nava xwe de lihev kiribûn serxwebûna Îranê biparêzin û di nava 6 mehan de piştî bidawî hatina şer hêzên xwe ji Îranê paşve bikêşin.

Di destpêka şerê cîhanî de, Stalîn bi hêvî bû bi riya peymana neşer li gel Hîtlêr, berjewendiyên xwe biparêze û her nebe bi Alman re nekeve nava şer. Encama wê siyasetê bû îmze kirina peymana meha Tebaxa sala 1939, ya demek kin berî ku Hîtlêr êrîş bike Poloniya di navbera Vyacheslav Molotov Wezîrê derve ye Sovyetê û ”Joachim von Ribbentrop” Wezîrê derve yê Alman. li koşka Kremlîn hate îmza kirin. Lê dema ku Alman ev




peyman şikand û êrîşî Sovyetê kir, Stalîn berjewendiyên hevbeş bi du dijminên xwe yên din, Ingilîs û DYA re dît û berê xwe da wan. Êdî Îran û Rojhilata Navîn bûne meydana germa bûyeran.

Ji bo çêkirina baweriyê û heya berjewendiyên her alî bi peymana fermî were parastin, Stalîn vê carê bi hevpîşeyên xwe yên Ingilîsî û Amerîkayî re hate dora maseyê. Ev pêvajo bi Konferansa dîrokî Tehranê, ku 28.11. heya 01.12.1943 pêk hat, kete jiyanê. Di wê konferansê de hêzên hevpeyman ku serehêzên demê bûn, li ser ava kirina cîhana piştî şer li hev kirin û di derbarê qedera siyasiye Îranê de jî hin biryarên gelek giring dan. Beşdarên Konferansa Tehranê, ”Josef Stalin”, ”Franklin Delano Roosevelt” û ”Winston ChurChill” biryar dan ku serxwebûna Îranê biparêzin û dema ku şer bi dawî dibe, ji Îranê paşekêşiyê bikin. Yanî her di wê demê de biryar hatibû dan ku her pirojeyek siyasî ku yek ji wan hêzan bêy destûra hevpeymanên xwe bi pêş bixîne, dereng an zû wê bê şikandin.

Di gel ku di wê demê de tiştek bi navê pirsa Kurd di rojevê de nebû û Kurdistan neketibû nav hisabên navneteweyî, lê biryarên li ser Îranê hatibûn dayîn, qedera gelê Kurd jî guherîn. Biryara parastina serxwebûna Îranê dihat wê manayê ku deselata dewleta navendî jî wê bê parastin û wê rê neyê dan ku sîstema siyasiye welat bi awayekê bê guherîn ku parsenga hêzê di herêmê de xera bike. Lê serketinên leşkerê Sovyetê di eniya bakûr de bû heger ku Sovyet ji soza ku bi Amerîka û Ingilîs re dabû, poşman bibe.

Dema hêzên Sovyetê li destpêka meha Gulana 1945 ala sor li ser deriye Reichstag, Parlemana Alman hildan, tama devê Stalîn ji bo pariyên bi dohn (bi rûn) li Rojhilata Navîn xweştir bû. Tevgerên nû yên neteweyî li hin heremên Kurdistan û Azerbaycan, ev hêvî da Stalîn ku rewşek weke ya li bakûrê Ewrûpa Rojhilat li Îranê pêk bîne. Lewma berevajî biryara Konferansa Tehranê, Yekîtiya Sovyetê hêzên xwe piştî şer ji Îranê paşve nekişand. Lê Ingilîs û Amerîka ev pilana Sovyetê nepejirandin û bi hemû îmkanên xwe zext dane ser Stalîn ku hêzên xwe ji herêmê paşde bikîşîne. Li meha Gulana 1946, 5 heyv piştî avabûna Komara Kurdistan, hêzên Sovyetê ji Îranê paşve kişiyan.

64 sal piştî pêkhatin û tevçûna Komara Kurdistan, tevgera netewî Kurd bi berdemabûn û bi berbelavbûna xwe nîşan da ku ne bi fermana Sovyetê hatibû ava kirin û ne jî bi encamên Konferansa Trehranê têk çû. Lê kêmasiyên tevgera Kurd di wê demê de rê da ku Komar pir zû û bi hêsanî bişkê û serhildana dubare bi derfetên nûye derekî re bê girêdan. Di pêvajoya avabûn û şikestina Komarê de piraniya xelk û herêmên Kurdistanê bêpar bûn. Başûrê Rojhilata Kurdistanê di bin dagîrkeriya Ingilîsan de bû, lewma projeya avakirina dewleta Kurd negîha wê herêmê. Bajarên xwedî ezmûna birêveberiyê û xwedî bandoryên Kurdistanê weke Sine û Kirmaşan li derveyî projeya dewleta Kurdî man. Bakûrê Rojhilat, ji Urmiyê re bigre heya sinûrê Sovyetê bi tenê weke piştewan û hevpeymanê Komarê, lê di rastiyê de li bin deselata Komara Azerbaycan de ma.

Damezirandina Komara Kurdistanê, di demekê de ku hê mesajek hevbeşa neteweyî li hemû Kurdistanê belav nebibû û piraniya gelê Kurd li dora pirojeyek hevbeşa neteweyî kom nebibûn, rê vekir ku pêvajoya avakirina dewletê berî xwegirtina tevgera neteweyî li Kurdistanê çê bibe. Di rewşek wisa de giringiya hebûna mekanîzmên parastina deselatê pitir derdikeve rojevê. Lê Komara ku derfet nedîtibû hêza xwe ya parastinê xurt bike û

tu serekaniyên abûrî û leşkerî tunebûn, di rojên asteng de tenê û bi serê xwe ma.

Ji ber ku siyaset û programa netewiye Komarê li hemû Rojhilata Kurdistanê belav nebûbû, tu berxwedana seranseriye neteweyî jî li hember hêzên dagîrker nehate kirin. Di rewşek weha de, asayî bû ku nêrîna tenge herêmî, bajarî û eşîrî serdest be û destketên netewî yên Komarê weke destketên hevbeş neyên temaşe kirin û her li gor wê boçûnê, siyasetek hevbeşe parastinê jî nekeve rojevê.

Pêkhatin û şikestina Komara Kurdistan, hem rûpelê zêrîne dîroka Kurd e û hem serekaniya jê fêr bûnê. Ji bo bi dest xistina encamên bi qazanca gel di pêvajoyên siyasî de hevbendî û yêkitiya neteweyî pêwîst e û ji bo parastina destketan, hevbendiya neteweyî û yek kirina rêzên gel. Tenê di rewşek wisa de ye ku bûyerên dereke û siyaseta navneteweyî li ser qazanca gel dikarin werin bi kar anîn. Belavî û nebûna hevbendiya neteweyî li rewşa nihayî a Rojhilata Kurdistanê nîşan dide ku qedera Komarê hê ji me re nebûye ders.

# Pirsa Kurd, Çareseriyek Stratêjîk Yan Taktîkek Siyasî



**Azad Kurdî**

Daxistina DTPê û encamên nigatîv ên vê kiryara ne demokratîk, derfeta ku ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd derketibû holê û hêviyên ku ji bo çareseriyê hêdî hêdî geş dibûn, ligel pêvajoyek nû rûbirû kir û zêde dişibe wê rewşê ya ku berî vebûna demokratîk û pêvajoya ku vê dawiyê li Turkiyê dimeşiya. Bi piratîk ev derfeta zêrîn û nû ji demokrasiya Turkiyê standin û carek din derfet ji dest dan û proses paşde xistin. Ev gav kêmasiyên di demokrasiya Tirkiyê de jî derdixe holê. Ji ber ku derê ku ji bo aştî û demokratîzekirina Turkiyê vedibû, dardan û pêvajoya çareserkirina pirsa Kurd heta demeke din yan ger gellek dûr nebe, heta çend salên din paşde xist. Hewla ku tevahiya hêzên ku çareseriyeke aştiyane, sivîl û demokratîk dixwastin, ligel têkçûnek rêjeyî rûbirû kir, bi awayekê ku êdî rayedarên hikûmeta AKPê û aliyên din heta niha jî be, bi kêmî daxuyanî derbarê pêvajoyê dane an her behs jê nekirine.

Ji aliyekê welatên demokratîk ên cîhanê, bi taybet welatên Yekîtiya Ewrûpayê ku AKP ji 2002’an ango destpêka ku hatiye ser desthilatdariyê û vir ve, bi cidî ji bo endambûna Tirkiyê di vê hevgirtina mezin a cîhanê de hewlê dide, ji aliyekî din jî hêz û rêxistinên siyasî, civakî û sivîl û çavdêrên siyasî li Turkiyê û Bakurê Kurdistanê, daxwazek sereke ji bo bidawîanîn bi pêvajoya daxistina partiyên siyasî, bi taybet partiyên siyasî ên Kurd xistin rojevê, ev jî guherîna qanûna bingehîn a Tirkiyê bû. Ji ber ku guherîna qanûna Turkiyê ku ligel normên civaka sivîl lihev nayên, dikare bibe bingehek ji bo çareserkirina pirsgirêkên Turkiyê. Herwiha dawî anîn bi şer û tundûtûjiyê û hewldan bo çareseriya demokratîk û aştiyane daxwazek din a sereke bûye.

Lê daxuyaniyên çend rojên borî ên Berdevkê Hikûmeta Turkiyê û Cihgirê Serokwezîrê vî welatî Cemîl Çîçek, derbarê vê pirsê, bêhêvîtiya ji bo çareserkirina pirsgirkên Turkiyê û yek ji wan doza Kurd zêde kir. Di rastî de, Çîçek bersiva raya giştî ya derve û hundirê wî welatî da, ku ew carê nikarin qanûna bingehîn a Tirkiyê biguherînin! Herwiha axaftinên çend rojên borî ên Wezîrê Hundir Beşîr Atalay, ku diyar kir pêvajoya vebûna demokratîk tenê ne pirsa hikûmeta AKPê ye, belku ev pirsa hemû dewletê ye û divê ew bi awayekî tevalî hewla çareseriya pirsgirêkên Turkiyê û yek ji wan pirsa Kurd bidin.

Ligel vê yekê ku siyasetvan û çalakvanên siyasî û civakî li Bakurê Kurdistanê jî, wek hêz û alî û çavdêrên derveyî Turkiyê pêşwazî ji pêvajoya vebûna Kurd û destpêbûna proseya demokratîk kirin, lê wisa tê xuyakirin ku ew guman û têdîtinên hêzên Kurdî û siyasetvan û çalakên siyasî û sivîl li hundirê Turkiyê hebûn, derbarê niyet û armanc û kiryarên dewleta Turkiyê li dor vê pêvajoyê bê hincet û bê heger nebûn. Herî zêde pêvajoyê pêwîstî bi diyalogek civakî a kûr di navbera Kurdan û dewletê de hebû û heye.

Ji ber ku piştî qedexekirina xebata siyasî a DTPê û xwepêşandanên girseyî ên berfireh ku wek erdhejekê rojeva siyasî ya Turkiyê hejand, Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) li cihê wê partiya Kurdî ya daxistî kete rojeva siyasî ya Tirkiyê, lê mixabin di destpêka xebata vê partiyê de, dewleta Turkiyê ligel endam û rêveberên wê bi başî tevnegeriya. Di çend operasyonan de siyasetvan û şaredarên BDPê hatin girtin û di dadgehên Turkiyê de doz li dijî wan vekirin û niha gelek ji wan xebatkarên BDPê, di girtîgehê de ne û berdewam îfadeyan didin.

Piştî zêdeyî 80 sal meşandina siyaseta asîmilasyon, tunekirin û bişavtinê, êdî hikûmeta Turkiyê gihîşt vê encamê ku şer û tundûtûjî nikare pirsê çareser bike. Bo yekemîn car piştî 80 salî, di Parlamena Turkiyê de ketne rojeva mesela Kurd bixwe serkevtinek mezin bû û paşdekişanek bêmînak jî di dîroka siyasî a Kurd bo îtirafkirin bi pirsa rewa a Kurd hat hesibandin. Ev yek derdixe holê ku taze pêvajo venagere rewşa berê, lê kêm û zêde dê kar li ser pêvajoyê were kirin. Ji ber ku nakokî û dijhevî di navbera hikûmeta AKP û opozîsyona hikûmetê jî di vê derbarê de gellek xurt e. Ji aliyekî din jî hilbijartinên 2011 ên Parlamenê jî di rê de ne û Kurd bixwe faktereke giring û bi bandor in. Niha hemû alî fehm dikin ku pêvajoya vebûna demokratîk ji her alî ve di berjewendiya Turkiyê de ye, bi taybet di warê siyasî, abûrî û civakî de.

Kurdên Bakur rêbaza xebata legal û demokratîk girtine pêşberî xwe û bi rêbazên sivîl û aştîxwazane doza maf û azadiyên xwe yên demokratîk dikin. Ew e ku ew dixwazin pirsa Kurd di nava Tirkiyê de bi awayekî aştiyane û demokratîk çareser bibe. Ji bo ku bi demokrasî û aştiyê mafên gelê Kurd hêsantir tên bidestxistin. Li hember vê yekê jî dewletê heta niha, zêde ziman û riftarên tundûtîj bikar aniye û tîne. Rêyek ku heta niha tu pirsgirêkek Turkiyê çareser nekiriye û nake jî.

Herçiqas ku niha çareseriya pirsa Kurd bi awayekî ku veger jêre nebe, di rojeva Tirkiyê de cihê xwe girtiye, lê ev pêvajo bi yekalî nayê çareserkirin. Aliyê Kurd doza çareseriyê dike û her gav û projeyeke bi kiryar û ji dil ku alîkariyê bide vê pêvajoyê, divê pêşwazîyê jê bike û wek derfet bikar bîne, ji aliyekî din jî pêwîst e hikûmeta AKP û dewleta Turkiyê bi giştî bixwaze ku vê pirsa giring û herwiha pirsgirêka mafê mirovan bi giştî li wî welatî çareser bike, ji bo vê yekê bikeve nav hewildanên cidî û pratîkî û vê yekê wekî stratejiya xwe temaşe bike, ne wek taktîkeke siyasî.



# Parazît Bo Ser Ragihandinên Giştî Ên Derweyî Welat Bi Çi Meremekê?



**Şehab Xalidî**

Wezareta “Îtilaat” a rejîma Îranê, çend rojan berî niha ragihand ku sebebê dijminatiya Amerîka û Îngilstanê tevî şoreşa Îslamî a Îranê ev e ku ev şoreşa bûye sebebê pêkanîna gefan bo ser qazanc û berjewendiyên rejîmên dagîrker li herêm û cîhanê de. Herwiha vê şoreşê kariye di nav xelkê raserî cîhanê de bandora xwe danêt û bibe sedema dilgermiya wan, lewra dezgehên îtlaatî yên Amerîka û Birîtanyayê stratejiya hiloşandina rejîma Îranê ji rêya nerm ve girtine pêşberî xwe, û heta budceyekî zaf jî jêre danîne.

Wezareta Îtilaatê herwiha îşare bi vê çendê jî kiriye ku hetanî niha di dirêjahiya wan çend salan de ragehandinên cur bi cur ji aliyê biyaniyan û sêrwîsên sîxoriyê û binyatên hikûmetî yên ser bi eniya Rojava û sehyonîzmê ve hatine avakirin ku terh û pirojeya wan hiloşandina vê nizamê ye.



Wezareta Îtilaatê ji “Dîplomasiya Giştî”, “Dîplomasiya Zanistî”, û “Dîplomasiya Ragehandinê” jî, wek dirûşmeke direvîn ji bo nifûza kirin di nav tex û qatên cur bi cur ên civakê weke hunermendan, Mamostayan, karnasên siyasî û... de nav biriye. Wezareta Îtilaatê bona berengariya tevî wan pîlanan ji bilî 62 binyatan, her cure alikariyeke tevî televîzyonên BBC, VoA, û Radyo Ferda û... qedexe kiriye.

Di rastî de rejîmên dîktator hertim bona rakêşana xelkekî zaf bo aliyê xwe, dijminên ferzî (xeyalî) ji xwe re destnîşan dikin û piştî wê jî bi danîn û damezrandina dem û dezgehên zaf xwedîhêz ên piropagendeyî şev û rojan mejiyê xelkê welat bi nûçe û rapor û zanyariyên bê bingeh tejî dikin, bi sebebê vê ku keltura şik û gumana pîlanan (Tewehomê Totiê) li Rojhilata Navîn bi taybetî li Îranê de gelek xwedî hêz e û bi sala ye rejîmên dîktator bo xapandina xelkê welatê xwe kar bo vê hindê kirine, heta çend salî berî niha jî vê siyasetê kiryarên xwe hebûn. Lê di wan çend salan de/ hinde zilm û zorî û gotinên bi direv ji wan axûndên desthlatdar dîtine ku îdî ne tenê baweriyê bi piropagendên wan nakin, belkî her bûyerek jî li welat de diqewme, dibêjin destê îtlaatê bixwe li vê bûyerê de heye.

Ku wisa bû siyaseta tawanbar kirina “sêrwîsên îtilaatî” ên bîhanî û bi taybetî binyat û damezrawe û Radyo û Telewîzyonên derweyî welat û Parazîtxistin li ser wan Televîzyonan nikare li vê serdemê de (Her çend li gorî yasayên NavNetewî parazîtxistina li ser setelaytan ne yasayî ye) pêşiya zanyarî gehandinê bigre.

Rejîma Îranê ji aliyeke ve îdaya vê hindê dike ku li Îranê de asayiş û ewlehî heye Lê hekî di Îranê de bûyereke wek teqîna çend rojan berî niha li Tehranê de rûy dide rejîm dibêje eva... karê dezgehên sîxorî ên Amrîka, Îngilîs û Îsraîlê ye Li wir de pirsyar eva ye, gelo hekî ewlehiyeke bê sînor li welat de hakim e, bes ew dezgehên sîxoriyê çawan dikarin ew hinde teqînan li Tehran û Zahidan û... birêve bibin? Gelek ji karnasên siyasî ên şareza li karûbarên Îranê de li ser vê bawerê ne ku rejîm tenê û tenê bona handana xelkê bi dijî Amerîka û Îsralî... û xapandina xelkê û rakişandina wan bo aliyê îdeolojiya xwe vê siyasetê didomîne.

Rejîm ji aliyekê ve bas ji vê hindê diket ku xelkê Îranê piştevanê nizamê ne û qet bi dirûşmên reng bi reng ên dujminan nahên xapandin û nakewine jêr bandora ragihandinên derweyî welat: Lê em dibînin rejîm li dirêjiya karên xwe ên neyasayî de dest bi xistina parazîtan li ser setelaytan dikin.

Bê şik ev biryara rejîmê jî nîşaneya tirsa rejîmê ji wan torên televîzyonî û asta herî bilind ya bandora wan ragehandinên giştî ên serbixwe û bê alî ye. Hekî rejîm ev hinde ji razîbûna xelkê welat ji xwe xatircem e, çima hewara xwe dibe ber parazît xistina bo ser ragehandinên giştî?

Hekî xelk ji rejîmê razî ne, çima girtîgehên weke Êvîn, Recayî şeher, Îşret Abad, pir ji mirovên zana, xwendekar, nivîskar û rojnamevan kirine.

Li dawiya de xêncî zirarên parazîtê boser saxlemiya Mirov bi taybetî jinên pêgiran, dibe em vê pirsê ji rêveberên rejîmê bikin ku hekî ew xelkê ku têne ser kolanan û dirûşman bi dijî rejîmê didin, û li encam de yan têne girtin yan jî têne kuştin, her hemû jî ser bi dezgehên sîxoriyê ên rojava bin, bes hûn dixwazin li wî welatî de deshilatdariyê bi ser kî/kê de bikin.

## Mafê Mirovan



**Nivîsîn: Peter R. Baehr**
**Wergeran: Mecîd Heqî**

# Rola mafê mirov li siyaseta dereve de

Li beşa berê de kereseyên înkar an helweşandina alîkariyên pêşveçûnê bi kurtî hat bas kirin. Ji bilî girifta “hatin bikar anînê” metirsiya wê heyê ku ew kare bibe hegerê wê ku kesên bêguneh bên siza dan – mirovên gelek jar ên ku di serî de alîkariya pêşveçûnê bo wana hatibû biryardan. Gelek zehmete karbidestên dewletê heta ger dewletek feqîr jî be li ragirtina alîkariyên pêşveçûnê zirarê bibînin.

Gelek zehmete mirov bêje, gelo birrîn an kurt kirina alîkariyên pêşveçûnê bo dewletekê ku mafên mirovan bi awayê sîstematîk dipelixîne, kereseyek baş e ji bo bêtir bûna rewşa mafên mirovan an ne. Dewleta Holendê li sala 1982 paşê ku dewleta leşkeriye Sûrînamê ku koloniya Holandê bû, 15 kes di dijberên xwe îdam kirin, alîkariya mezine xwe bo pêşveçûnê qutandin (derbara wê mijarê di beşên pêşerojê de). Herwek piştî *qut kirina* alîkariyan zehmet e biryar bihê dan gelo ew kare li berjewendiya mafên mirov da bûye an ne, *berî birîna alîkariya* zanîna wê yekê hin girantir e.

Lewma ji bo welatên ku alîkariyê dikin, gelek giringe ku berî alîkarî kirinê bidin xuya kirin ku ew alîkariyene ji bo pelxandina mafên mirovan an alîkariya rejîmên serkutkar nine. Siyaseta “Destê paqij” nikare gelek alîkariya xelkê feqîr û jar bike alîkarî wê demê dê tenê bo wan welatên kêm be: Yên wek Kosta Rîka, Botswana û Umanê yên ku mafê mirov diparêzin, bibe. Vê pirsê çareseriyek asan nîne.

Yek ji rêyên nîşandana nerazî bûn li rewşa mafê mirov li dewletek din, birîna beşek ji alîkariya peşveçûnê ye Her wekî Norwêjê dijî Sirîlankayê bi kar anî. Lê metirsiya wê heye ku welatê wergirê alîkariyê temamiya alîkariyê ret biket. Herwekî dewleta Endonisiya li hember yarmetiya Holendayê li sala 1992’ê de encam da.

Kiryarên erênî ji bo pêşveçûna rewşa mafê mirov renge gelek bikar tir bin hetanî gavên nerênî. Armanca serekiye alîkariya pêşveçûnê, pêşvebirina mafên civakî û abûrîye welatiyên wergirê yarmetiyê ye. Alîkariya han herwisa dikaribe piştgiriya wan sazî û rêkxistinanên xwecih biket ên ku armanca wan pêşvebirina mafên sîvîl û ramyarî ye.

Ew yarmetiye dikare alîkariya pêşveçûna pêvajoya dadwerî, pêşveçûna rola ragehandin û medyayê, alîkariya pêşveçûna sendîkayên serbixwe, alîkariya perwerde kirina dadwer û qaziyan bike, alîkariya reforma zîndanan bike, alîkariya dariêtina yasayên guncaw di gel standardên navnetewî bike, perwerdeya supa û polîsî bike Li warê mafê mirov, piştgiriya pirojeyên Neteweyên Yekgirtî û herwisa alîkariya navbera zanîngehan bike. Alîkarî herwisa dikare piştgiriya wan bizavan bike ên ku ji bo demokrasî û peşveçûna mafê mirov xebatê dikin.

# 2010, Sala Pirsgirêkên Rojhilata Navîn



**Cawîd Esxerî**

Wekî diyar û berçav, sala 2010'ê, dê, yek ji salên pir ji bûyer aloz û bi pirsgirêk be. Çûnkî gelek ji pirsgirêk, arîşe û meselên sala 2009'an, nehatine çareser kirin yan jî bo sala 2010'an, hatine paşxistin. Bi awayek din wekî mîrat bo sala nû ya 2010'an bi cî mane.

Di vê navberê de girîngtirîn pirsgirêk û meselên siyasî yên cîhanê, girêdayî çarçoveya coxrafiyayî a Rojhilata Navîn in. Bi wateyek din arîşe û giriftên siyasî û civakî yên vê deverê pitir ji her deverek din li medyayên cîhanê de dengvedan û rengvedan hebûne.

Li jêr de emê qala çend welatan bikin ku pirsgirêkên siyasî û civakî têde li xurt bûnê de ne.

**Îran**



Rejîma Komara Îslamî a Îranê niha di hundirê xwe de tûşî kirîzên siyasî bûye û her ku diçe, rewşa navxweyî a Îranê xerabtir, pêlên serhildanê bihêztir û dirûşm jî radîkaltir dibin. Cuda ji meseleyên hundir, di siyaseta derve de jî rastî kirîzan hatiye. Dosyeya Navikî ya Îranê her li ser maseya welatên Rojava ye. Lê heta niha ne Rojava û ne jî Îranê, nekarîne li ser vê dosyayê bi encamek dilxwaz bigihîjin, her ku dem derbas dibe, xeterî û metirsiyên vê dosyayê navikî a Komara Îslamî bal civaka cîhanî zêdetir dibin.

Welatên Rojava û li serweyî hemûyan jî Amerîkayê, dawiya kanûna 2009'an bo got û bêj li ser dosyeya Navikî a Îranê diyarî kiribûn, lê Îranê piştî dawîhatina dema diyarîkri, li cihê wê ku bersivê bide, li hember de dem bo welatên Rojava diyar kir.

wekî xuya komara Îslamî tenê li hizra xapandina rojava û kuştina demêde ye û bi vê siyasetê kariye heya qasekê bernameyên xwe pêş bixe. Li hember de ji welatên Rojava xwe gerrek nû ji dorpêç û baykotan li dijî Îranê amade dikin.

Her çend ku welatên Rûsiya û Çînê, dixwazin proseya baykota nû ya girûp 5+1 tûşî asteng an dikin, lê bi bi vî halî jî bi raya hin ji karnasan, Dosya Navikî ya Îranê dê yek ji girîngtirîn û pir êştirîn dosyayên siyasî yên cîhanê di sala nû ya 2010'an de be.

**Felestîn û Îsraîl**



Meseleya Felestîn û Îsraîlê, pirsek e ku heyamekî zêde ye Rojhilata Navîn di dest de dinalîne û vê carê digel aloziyên zêdetir ve bo sala 2010'an bi mîrat ma.

Heyamekî zor e rikeberiya Felestîniyan bi hev re ji aliyekê û ji aliyê dinê jî berdewamiya aloziyên di navbera Îsraîl û Felestîniyan, bûne sedem ku proseya aştiya wan jî wekî mîrat bo sala nû ya Zayînî bimîne. Herwekî diyar û xuya, heta niha Felestîniyan nekariye di asta navxweyî de bi rêketinek aştiyane û netewî bigihîjin. Bi vî awayî jî sala 2010'an, bo Felestîniyan salekî pir girîng, zehmet û dijwar e. Bi taybetî ku niha hilbijartinên nûnerên Parleman û herwiha Serkomariya wan nizîk e, lê heta niha jî deste û girûpên Felestînî ku ji hemûyan girîngtir Feth û Hemas in, nekarîne rêçareyekê bo çareserkirina arîşe û pirsgirêkên hundirê xwe peyda bikin û herwiha hikûmetek neteweyî pêk bînin. ji aliyê dinê jî got û bêjên Felestîn û Îsraîl, bervajî zext û givaşên navnetewî, heya niha jî bi encamek çanihêrkirî û dilxwaz negihîştine.

**Îraq**



Xelkê Îraqê di sala 2oo9'an de, yek ji girîntirîn û dijwartirîn ezmûnên demokratîk ên xwe derbas kirin û biryar e ku di roja 7'ê, Adara 2010'an de, hilbijartinên Parlematoya wî welatî birêve biçin û cuda ji hilbijartina nûnerên parlemantoyê ji aliyê xelkê ve, dibe çarenivîsa Postên girîng wek Serok Komar û Serok Wezîr jî bê diyarî kirin.

Partiyên Siyasî yên Îraqê her ji niha ve dest bi rikeberiyeke dijwar bo hilbijartina nûneran bo parlementoyê kirine û di rastî de, bizavên siyasî ên xwe dane dest pêkirin.

Niha her terze pêşbîniyek bo pêşeroja Îraqê pir zehmet û dijwar e. Lê axaftinên derheq birêve çûna baş û dûr ji alozî a vê hilbijartinê, dilxweşker in:

**Efxanistan**



Hilbijartinên parlementoya Efxanistanê di sala nû de bi girîngtirîn bûyera siyasî tê hesibandin. Hilbijartinên parlemantoya wî welatî jî ku dê di meha Gulana Îsal de bi rêvebiçin û mumkine rewşa siyasî ya Efxanistanê bi giştî biguherîne, lê em nikarin bêjin ku mesela hilbijardinên wî welatî, take pirsgirêka Efxanistanê ye. Di vê navberê de Hamid Kerzay Serok Komarê Efxanistanê, di meha çileya Paşîn a 2009'an de, bo cara duyemîn kabîneya nû ya xwe pêkhatî ji 24 Wezîran pêşniyazî parlemanê kir. Lê ji vê hejmarê, carê tenê 14 Wezîr ji aliyê Perlemantoyê ve hatine erê kirin. Bi vî awayî jî tê pêşbînîkirin pirsgirêkên siyasî yên Efxanistanê her wisa dom bikin.

Ji aliyê din ve kirîza tenahî û ewlehî di wî welatî de roj bi roj berfirehtir û xirabtir dibe herweha rêxistina Elqaîde û ya Taliban di Efxanistanê de xurttir bûne û hêzên hevpeyman tûşî pirsgirêkekên zêde di wî welatî de kirine.

**Yemen**



Em dikarin bibêjin ku îsal welatekî nû bi koma welatên aloz û bişer yê Rojhihlata Navîn zêde bûye, ku ew jî Yemen e. Welatê Yemen di sala 2009'an, gelek alozî û ne ewlehiyek zêde û bi zirar dît.

Şerek ku berevajî soz û peymanên Elî Ebdula Salih, Serok Komarê Yemenê û hewriha piştgîriya leşkeriya Erebistanê ji hêzên wî welatî, eva çend meh e ku dom dike. Heta niha jî ne Erebistan û ne jî Yemenê nekarîne vê aloziyê kuntirol bikin: cunku Îran destêwerdanê li wî welatî û piştgîriya rêxistina Hosî a şîe ya cudaxwaz dike.

Tê pêşbînîkirin ku di sala 2010'an de, ew pevçûn li Yemenê de herwisa dom bikin û tenahî û ewlehiya welatê Yemenê jî tevlîhev bike.

Ew girûpa terorîstî zêde di Bakûrê welatê Yemenê de cihgîr bûne, û hewl dide Parêzgeha El sede di bin kuntirola hikûmeta Yemenê de derbîne. Lê hikûmeta Yemenê tenê digel wê meselê de berbirû nine, belkî di Başûra wî welatî de jî tûşî şerek giran û dijwar digel Elqaîdê de ye. Rêxistina Elqaîdê piştî wan desttêwerdanên Îranê li Yemenê de, heyamek e ku li wir de pir çalak e. Lê hikûmeta Yemenê bi hevkariya hêzên leşkerî ên Amerîkayê heta qasekê ji çalakiyên kavilkarî ên Elqaîde kêm kiriye. Bi awayekê ku gelek ji karnasan dibêjin di demekî nêzîk de sêyemîn şerê Amerîkayê dê li welatê Yemenê de rû bide. Eva jî tiştek e ku bi dilê Komara Îslamî ya Îranê ye û bi armanca aloziyên zêdetir li wî welatî dûr kirina raya giştî ji xwe û kêm kirina givaşan li ser xwe. dest bi her karek xirabkarane li wî welatî de dibe.

# Du Biryarên Dijî Hev Û Sepîner



Hemîd Muxtarî



Azadî, pênaseyên berfireh û cuda cuda hene. Her kes dikare pênaseyek taybet ji azadiyê li gor dîtina xwe hebe. Bo mînak kesên ku di zîndanê de ne, revîn û derketin ji zîndanê ji xwe re wek azadî dihesibînin. Lê ger em di çarçoveyek mezintir de mêzeyî vê mijarê bikin, dibînin ku bi milyon kes li seranserê cîhanê bo rizgarbûn ji dest wan zincîr û bendên rejîmên totalîtar û bidestxistina azadiya mirovahiyê di gişt waran de derketin qada xebatê û di vê pêxemê de canê xwe kirine gorî.

Azadî mijarek pirr berfireh e û gellek çiqlên wê hene.

Lê eva ku em dixwazin di vê mijarê de li ser binivîsîn û bas lê bikin, azadiya lixwekirinê di Îranê de ye ku dikeve çarçoveya azadiya takekesî de.

**Can Stwart Mîl** azadiya takekesî bi vî awayî pênase dike: Azadî wate mirov azad e ku bernameya jiyana xwe li gor dilê xwe dabirêje û çawa ku bi xwe hez dike jiyanê bike. Anku mirov azad e ku çi lixwe bike, çi bixwe, digel kê de bigere, alîgirî ji çi alî û ramanekê bike û... Heya dema ku takekes bi kiryarên xwe derbe ji hevwelatiyên xwe nede û pê neavêjin di nava biyava wan a takekesî de, her karek ku bixwaze, dikare bike.

Di dîroka Îranê de di navbera 45 salan de anku ji sala 1324 heya 1359 (1936 – 1981) de du biryarên bizorî derheq çawaniya lixwekirina jinan hatin dayîn. Biryara yekem di Çileya Paşîn a sala 1936 a Zayînî ji aliyê Riza Şah ve ku bi "Keşfê Hicab" hatiye binavkirin, hat derkirin. Wê demê hatina kultûra Rojavayî bigiştî, nemaze welatê Firansayê jinên Îranê ên di asta bilinde civakê anku jinên zana û xwedî zanist ku wê demê hejmara wan pirr kêm bû, xistibû bin bandora xwe. Riza Şaha jî ku bi xwe ketibû bin karîgeriya wê kultûrê, biryar da ku keç û jinên Îranê di cihên giştî û dem û dezgehên dewletî, zanko, dibistan û... de xawik û çadirê nexin serê xwe. Du salan piştî hilweşandina rejîma Paşayetî, anku di sala 1981 a Zayînî de melayên taze bidesthilat gihîştî dîsan biryarek nû a bizorî derheq jinan derkirin. Lê ew biryar berevajî biryara Reza Şah bû, ew jî bizorîkirina lixwekirinê.



Herçend ku her du biryarên derheq jinan di yek xal de havbeş in, ew jî bizorî sepandina biryarê û cîbicîkirina wê bû: Lê niyetên her du aliyan bi tewahî ji hevdu dûr û cuda bûn. Di serdemê desthilatdariiya Rejîma Paşayetî de rewşa huqûqî a jinan gellek ji rewşa wan a niha baştir bû. Wan karîbûn gellek xwestekên xwe di wê serdemê de bidest bixin û xwediyê keramet û kesayetiya xwe bûn. Lê piştî sala 1979 a Zayînî gav bi gav pirraniya ew mafên ku jinan bi dehan sal jêre xebat kiribûn û bidest xistibûn, rejîma melayan li Îranê ji wan stand û ew lê bêpar kirin. Derxistina hemû jinên laîk û azadîxwaz di îdare û binke û dezgehên dewletî de û şandina wan bo nava malê bo encamdana karûbarên malê wek zarok mezinkirin, risq çêkirin, kincşuştin û... rewşek pirr xirabtir bi ser jinan da da sepandin. Cudakirina keç û xortan di dibistanan de û guhertina waneyên dersî û pirtûkên xwendinê ku bi eşkere têde piropagende ji bo civakek mêrserdestî dike wek diyarîkirina rola maldarîkirin û nanlênan û zarokmezinkirin ji bo jinan û dana karê li derveyî malê jî bi mêran bi eşkere apartayda regezî dixe berçav.

Rejîma Îranê bêhurmetiyên han heya vê qasê domand ku biryar da şeqamên hatin û çûnê ên cuda cuda ji bo mêr û jinan werin diyarîkirin. Herwiha li van çend salên dawî jî wan bi derkirina terhek nû bi navê "Parastina Ewlehiya Civakê" qonaxek nû a tepeserkirina jinan dest pê kirin.

Ya ku balkêş e, eva ye ku rejîm ji aliyekê ve piropaganda ji bo îsamîbûna desthilata xwe dike û bi vê navê dest diavêje biyava taybetî a takekesan û ji wan re curê kincan diyarî dike, ji aliyek din ve di girtîgehên xwe de destrêjiya seksî dike ser keç û heta xortên welatê me. Bo mînak her midehekê beriya niha piştî binav hilbijartina ger dehem a serokkomariyî ew ciwanên ku hatin ser şeqaman û daxwaza dengê xwe dikirin û ji aliyê hêzên rejîmê ve hatibûn girtin, di girtîgeha Kehrîzekê ketibûne ber destrêjîya seksî.

Lê ew kiryara, nepenî nema û piştî eşkerebûn di asta navnetewî de kete ber rexne û mehkûmkirinê. Heya astekê ku rejîmê biryar da wê zîndanê bi yekcarî dabixin. Kiryarekî hovane ku heta mirov nikare bîr lê bike. Vê rejîmê di rastî de Îslam ji xwe re kiriye mertal û hemû kiryarekî nemirovane di bin vî navî de encam dide. Her di vê pêwendiyê de em dikarin îşare bi kuştina xelkê di meha Muherem de bikim, mehek ku di Îslamê de û bal pêrewên Şîe mezheb, mehek pirr pîroz û bimbarek e û nabe di vê mehê de xwîn were rêtin.

Rejîma Şah ku heya astekê Sekolar jî bû dema ku di sala 1978'an de, xelk hate ser şeqaman û li dijî wî dirûşm dan ji aliyê Şah ve biryar hat dayîn ku hurmeta vê rojê were ragirtin û kes nehê kuştin. Lê ev rejîma ku xwe bi rejîmek Îslamî dizane di meha muherem û di roja Aşûraya îsal de xelkên nerazî ku tenê daxwaza dengê xwe dikirin, da ber guleyan û heta bi trombîlan li ser laşên wan de derbaz bû.

Bi giştî tenê di sîstemek demokratîk, sekolar û dadperwer de ye ku mafê her takekesekê bi taybet ya qata herî çewsandî û mafxwarî ya jinan tê garantîkirin.

# HEMDEMÎ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Hemdemî, ji aliyekî ve tê wateya kesên ku di heman demê de dijîn û ji aliyê din ve jî tê wateya geşedanî û şaristaniya gerdûnî. Hemdemî, her wiha wekî şêwaza şareza ya jiyana civatê û hebûna wê ya arişî û daringî jî tê pejirandin. Wekî din jî hemdemî, wateya çawaniya fikr û ramanê huner û wêjeyê û her wiha tevê kevneşopiyên civakê jî dihundirîne. Ango hemdemî, domana jiyana mirov û civakê ya pêşverû, nûjen, tûmandar û têkûz e.

Hemdemî, diyardeyeke civakên/takeksên şareza, azad û pêşverû ye. Heta ku civak/takekes şareza nebe, nikare pêşve biçe; heta ku pêşve neçe, nikare demokrasiyê pêk bîne û heta ku demokrasiyê jî pêk neyîne, nikare bi awayekî hemdem tevbigere. Ev têgîn û diyardeyên komelayetî hemû têkildarê hev û din in û her yek ji wan girêdayî ya din wateya xwe temam dike û digihîje armanca xwe.

Hemdemî, helwesteke pêşverû, mirovî û gerdûnî ye. Hemdemî, parvekirina demê ye. Mirovên ku di heman demê an serdemê de dijîn, bi awayekî hemû jî hemdem in. Belê hemû ne demokrat, şareza an jî pêşverû ne. Berevajî wê, ji çi nîjadê dibin bila bibin, li kîjan erdnîgariyê dijîn bila bijîn, çîn, civak û neteweya wan çi dibe bila bibe; ji ber ku hemû mirov di heman serdemê de û li ser heman rûzemînê dijîn, mirov dikare bi her awayî wan wekî kesên hemdem û hemserdem bibîne û bipejirîne. Çimkî têgîna hemdemî, ji koka peyva demê tê. Îcar ên ku vê peyvê bikar tînin, wateya wê ya têgînî, bi mizawirî û konedariyeke xurt rave, an jî li gorî dilê xwe şîrove dikin. Îro hemdemî, tenê di wateya pêşverûtî an şarezatiyê de tê bikaranîn. Belê ravekirin û navandineke bi vî awayî her gav rast e. Rast be jî kêm e.

Çawa ku ji her mirovên ku di heman salê de bûne" hemsal" tê gotin, an ji her mirovên ku ji heman şehrî (bajarî) ne, "hemşehrî" tê gotin; divê bi heman awayî tenê ji mirovên ku di heman dem/serdemê de dijîn re "hemdem" bête gotin. Hemdemîtî ne pêşverûtî, ne şarezabûnî û ne jî demokratîkbûnî ye. Îro serjimara cîhanê li dora şeş mîlyaran e. Îcar ji ber ku hemû di heman demê de dijîn an hemû heman demê parve dikin, birastî jî hemû jî bo hev hemdem û serdem in. Belê em nikarin bibêjin hemû mirov şareza, demakrat, pêşverû û navneteweyîparêz (înternasyonalîst) in. Çimkî, pergalên cîhanê yên hemdem(ên berê jî) hemû li ser hîmê kedxwariyê ava bûne. Ji ber ku ev pergal li ser hîmê kedxwarî û rikdariyê ava bûne û hergav bi vê egerê tevdigerin, di navbera mirovan de gelek dubendî û nakokiyên lêkneker pêk anîne. Û ev feraset jî hê gelekî dûrî zanistî û pêşverûtiya gerdûnî û her wiha yeksanî û şaristaniya hemdem e.

Ji ber ku hemû xenîmeyên (nîmetên) vê dinê ne di suxreya mirov û mirovahiyê de ne û dîsa ji ber ku rûdanên teknolojîk û zanistî hemû di suxreya berjewendiyên çend kesên/hêzên zoran û desthilatdar de têne bikaranîn, şaristanî jî hê negihîştiye armanca xwe. Ma di navbera du mirovên hemdem bi her awayî , bi qasî navbera erd û asîman ferq û cudatî hebe, mirov dikare behsa şaristaniyeke gerdûnî û hemdem bike. Pêşî divê ku di her warî de di navbera hemû mirovan hevbeşî û parvekirin hebe ku şaristanî û demokrasî pêk were. Hekena, ne teknolojî ne jî şaristanî nikare roleke pêşverû bilîze û peywira xwe bi cih bîne. Ji bo wê mirov dikare bibêje, ji ber ku alavên teknolojîiyê her gav di xizmeta pergalên mijokdar û hêzên şerxwaz de bikar tên, teknolojî jî di mercên îroyîn de roleke bêxêr, bêkêr û paşverû dilîze. Şaristaniya rastîn li derê ha, bi kargehên çekên kîmyewî, atom û napalmên komkujiyê û derxistina şer û pevçûnên gerdûnî hê mirovahî di nava şaşî û tewşiyeke paşverû de diperpite. Heta ku şaristaniya cîhanê ligel hemû rûdanên teknolojîk û zanistî, ji aliyê tevê mirovên cîhanê de bi awayekî yeksan neyên parvekirin; ne pêkan e ku ne demokrasiya rastîn a gerdûnî û ne jî navneteweyî parêzî bi dest bikeve. Çimkî şaristaniya gerdûnî û demokratîk, radeya herî bilind û payeberz ya mirovatiyê ye.

*Kaniya Helbestan*

# Em Ferhadin



**Bêhzad Simko**

Tu ey evîndarê xelkê şîrîn,
Evîna we, nebe wek Mem û Zîn!
Welat, ne Zîne, ey xelkê dîrîn
Nehêlin, destê Bekoyê leîn
Wek milyon Şehîdê kurdê dîrîn
Wek Qasimlo, Şehîdê dilbirîn
Wek Şerefkendî, Şehîdê şîrîn
Wek sê Şehîdên Sablaxa dîrîn
Emin warisê ew şêrê dîrîn
We bîr nakin hetanî hebe jîn
Jîna jiyana şirîn û birîn,
Nav kul û êş û birînên bixwîn
Em Ferhad in, Kurdistana şîrîn!
Pêşmergê şêrê jiyana evîn

# Çend Gotinên Şaşomaşo



**Konê Reş**

Carna tu neçar dibî ku dergehê mala xwe ji ber bahozê bigrî, da ku xewnên te yên kevin bi xwe re nebe û tu bi aramî di mala xwe de razêy. Çarna Pêwîst e tu dergehê mala xwe, pencereyên mala xwe ji bahozê re vekî...

Erê, bela bahoz derbasî mala te bibe, firax û miraxên te li hev xîne, bîranînên te tev bide... û berê pencereyên mala te biguherîne...

Carna jî pêwîst e ku tu bang li bahozê bikî da ku berê asoyê nerînên te biguherîne...

Raweste ezbenî! Te aghadar bikim... Gelek caran bahoz giring in, pêwîstiya mirov bi hin volqanên temirandî heye, ku careke din ew volqan gurr bibin...

Carna mitbûn û bêdengî, westandin û perîşaniye.. Ma tu ji lavlav û rawestandina di rêzê de ne westiyayî..? Ew rêz û sekinandina li hêviya Sultan.. û Sultan jî te nas nake.. Hayê wî ji rawestandina te, xuzkirina te, gilî û gazinên te nîne. Reva te ji ber, bala wî nakşîne... Bi tenê jêre giringe ku pişta te lêbe û tu dûrî wî herî...

Carna kursî ji rûniştina rûniştvanan diwestin! Çima kursî nameşin û ji xwe re li cihekî bilindtir nagerin...?! Xwezî kursî biaxifyana... Bawer nekin ez bê hêvî bibim, hêviyên min mezin in... Rojekê wê kursî biaxifin, lê ne bi zimanê ku îro em pê diaxifin..

Carna tu neçar dibî ku di bajarê Kerran re bimeşî.. Hingî devê xwe bigre.. Ne bistirê û ne bike hawar.. Kî bi te dikene bela bikene..

Lê dema ku tu di bajarê koran re bimeşî, destê xwe deyne ser çavê xwe, da ku diz û keleş te nebînin.. Ewên ku di mejiyê te de dimeşin û bi navê te, duroşmên ji xwe tu te mezintir, ji bo rizgarbûna welat bang dikin... Pêwîste tu xwe razî bikî, ku tu ji wan bawer dikî û destê xwe ji ser çavê xwe nede alî.. Bila çavên te girtî bin, wê ji te re bêjin tu mirovekî çak û rind î... An na, wê ji te re bêjin tu kurdekî tirsonek, bizdok û newêrekî... Bila çavên te girtî bin, destê xwe ji ser wan nede alî.. Li dûr mêze neke... Aram be, bêdeng be da ku serê te neêşe û xew li te neherime..

Carna tu mêze dikî ku cudahiya me û ereban, tirkan û farisan ziman e.. û rêxistinên me, ziman di ser guhên xwe re avêtine.. Bi dûv qezencên xwe yên kesayetî de kor bûne, nakokiyê ew kerr kirine, dubendiya di navbera Lêvegera Kurdî û Encumena Siyasî de ew lal kirine... Hêk ji Mirîşkê ye an Mirîşk ji Hêkê ye ew heyrandine û wiha milet perîşan dibe û ziman û folklorê me tûşî talanê dibe..

Carna zore ku mirov bê deng bimîne, lê ezbenî xwe fêr bike... xwe fêrî bêdengiyê bike.. Ku ji te hat xwestin û tu neçarî axaftinê bûy, bi darên mala xwe re biaxife. Ku nebin, bi darên di kolanê de biaxife ku ew jî nebin, bi xwe re biaxife û bêje; ev heyamekî lewitî ye, ta bi qelem, kaxez, sinc û kursî lewitîne... Lê ji min re nebêje were beşdariya bêdengiyê bi min re bike, hez lalbûnê nakim, ji ber ku her dem hez dikim van gotinan bibêjim:

**Bavo, li dinyê ji me kêmtir kes nemaye, heçî milet hene, tevda bûne dewlet û hikûmet. Xudan kitêb û dibistan, bi tenê em miletê Kurd bi şûnde mane, reben, feqîr, nezan, belengaz di destê xelkê de lehîstok. Xelkê hefsarê me kiriye destê xwe da, li gor kêf û menfîeta xwe berê me ji Bakûr dide nîvro, ji Rojava dide Rojhilat, ji lewra divêt em jî bixebitin, xelkên xwe hînî xwendin û nivîsandinê bikin, vî miletê belengaz ji tarîyê xelas bikin, berê wî bidin tav û ronahîyê..**

Mîr Celadet Bedirxan, kovara Roja Nû, hejmara (1) Beyrût /1943.

**Malxerabo! Ma we ew çend wext nîne, kû hûn ji bo hînbûna zimanê biyaniyan bi salane xebitîne û îro jî dixebitin. ji bona kû bikarin (fînfoneke) derewîn bilêv bikin. Kuro eyb e, şerme, fihête, an hînî xwend in û nivîsandina bi zimanê xwe bibin, an mebêjin em Kurdin. Bê ziman Kurdîtî ji we ra ne romet e, ji me ra rûreşîyeke giran e. Heyf û hezar mixabin, nemaze ji wan ra kû bi zimanên din dizanin bixwînin û binivîsînin û alfabêya zimanê xwe hêj nas nakin**..

Mîr Celadet Bedirxan, kovara Hawarê, hejmara (27) Şam /1941.

# Çanda xwarinê ya kurdan bû Pirtûk

Mirella Galetti" ya Îtalî û Fuad Rahman Kerkûkî ku li bajarê Torino'yê dijîn û karê restorantê dikin, pêjgeha kurdan kirin pirtûk.

Di beşa yekem a Pirtûka Mirella Galletti ya bi navê 'Çanda Kurd a Xwarinê' de, hin nivîsên derbarê kevneşopiya hînbûyîna ku kurd çi dixwen, cî digirin.

Galletti, li gel berhemên herêmî û awayê jiyana li gundan, li ser pêkutiyên olî, bandorên ereb, fars û osmaniyan jî radiweste û çanda tam û çêja xwarinê ya li Kurdistanê ji aliyê dîrokî û cografî ve bi kurtî vedibêje.

Nivîskar li ser pêjgeha kurdan a dawiya sedsala 20`an jî radiweste û balê dikşîne ser di serdema modern û guherînên di warê awayê jiyana kurdan û çanda herêmî de.

Di beşa duyem de, di berhemên klasîk ên mîna Mem û Zîn de, an di helbestên populer de û heya ku xwarinên bi pênûsa Erebê Şemo li ser lênûskan cî girtine, li gel cejn û vexwarinan, kurtevegotineke wêjeyî cî digire.




Her wiha bi alîkariya antolojiya çîrokên gerokan, ji Marco Polo bigire heya Giuseppe Anaclerio, Pietro della Valle û Giuseppe Campanile, bi sedê salan biyaniyên ku bûne şahidên mêvanperweriya kurdan û xwarinên ku ji wan re hatine pêşkêşkirin, bi çavdêriyeke dîrokî hatine vegotin. Di beşa dawî ya pirtûkê de, li gor çanda xwarina kurd û xwarinên ku timî têne xwarin, rêzek tarîfên ku hatine senifandin, cî digirin. Di bîblografyayê de jî, xwarinên herî navdar û tên hezkirin ên Kurdistanê, bîranînên sofreya xelîfeyan û heşmeta kevin a farisan, hatine vegotin. Her wiha dîroka xwarinên di dema îslamiyetê de û yên berî îslamê jî, bi kurtî hatine vegotin.

Mirella Galetti ku li Zanîngeha Napoliyê doçenta, ku dîroka welatên musulman e, derbarê Kurdistanê û kurdan de gelek pirtûk û gotar nivîsîne. Fuad Rehman Kerkûkî jî, niha li Torino'yê xwediyê restoranta bi navê Kerkûk Cafe`yê ye û xwarinên Kurdî û Ereban çê dikin.

**Amîda Kurd**

# Şiroveya Gotinên Pêşiyan

Beşa 9



Çiya Mazî

**Gotinek Venezûella:**
Kêfxweşî di jiyana herkesî de carekê derbas dibe, jibîr nekin.
**Gotineke Taylandî:**
Zewac wekî kelehekê ye; yên derve ji bo têkevin hundur, yên hundur jî ji bo ku derkevin, di liv û lebatê de ne.
**Gotinek Şîlî:**
Xweşikî, diyariyeke ku xwezayê pêşkêşî jinan kiriye, lê ya ku di pêşiyê de bi şûnde jî distîne ye.
**Gotinek Îtalî:**
Êşên mezin bêdeng in.
**Gotinek Nîjerya:**
Xemgîniyên biçûk dipeyîvin, derdên mezin bêziman in.
**Gotinek Japonî:**
Jina te ya pêşî xwedê, ya duduyan mirov, ya sisiyan şeytan dişîne.
**Gotinek Frensî:**
Îdeal, wekî Stêrkan in. Girtina wan ne pêkan e. Lê belê di şevên tarî de ji rêya mirov re rêberiyê dikin.
**Gotineke Polonî:**
Bihar keçek ciwan, Havîn dayikek, Payîz jinebiyek, Zivistan jî dêmariyek e.
**Gotinek Danmarkî:**
Mêrekî kerr û jineke kor, jinûmêrekî dilşa ne.
**Ji Qur'anê Gotinek:**
Ne Tav dikare bigihêje Heyvê, ne jî şev dikare rojê derbas bike, her yek di xêzika xwe de avjeniyê dikin.(Yasîn-40)
**Ji Încîlê hinek mînakên gotinan:**
Zora xerabiyê bi xerabiyê nebe, bi qenciyê bibe.
Evîn weke mirinê bi hêz, weke gorê dexas e.
Her dar, ji mêwa xwe tê zanîn.

**GOTÎNÊN NAVDARAN**

Di lîteratura wêje û çandê de an zargotinê de beşeke din jî "gotinên navdaran" e. Cudatiya wan ji biwêjan bi awayekî berbiçav heye. Bi piranî nêzî gotinên pêşiyan e. Ji xwe dema ku nivîskarê wan ne diyar bin, ew bi xwe dibin gotinên pêşiyan. Gotinên pêşiyan jî bi piranî wiha hatine holê ku dûre nivîskarên wan hatine jibîrkirin. Ji ber wateya wan girîng û ji bo cudabûna wan û gotinên pêşiyan an biwêjan bê fêmkirin, hinek mînakên hilbijartî li jêr in:

Li dilê xwe binihêre û wilo binivîse. (Sir Philip Sidney)
Zanîn, çavkaniya başnivîsandinê ye. (Horatiûs)
Ger hûn dixwazin bibin nivîskar, binivîsin. (Epîtetos)
Yên herî xizan, peyayên dîrokê yên herî mezin in. (Emerson)
Tiştê ku tu rast dibînî bike; te divê bila dinya xerab bibe. (Herbert)
Ger hêvî nemîne, zewqa jiyanê jî namîne. (Emîle Zola)
Dil li ku be, welatheziya rastî jî li wir e. (Berkeley)

Zîncîra ku hûn dixin stûyê dîlekî, seriyê wê yî din dikeve stûyê we. (Emerson)
Helbest hevalê tenêtiyê ye. (Cervantes)
Yê ku siyasetê û exlaq ji hev vediqetînin, tê wê maneyê ku ew herduyan jî fêm nakin. (Jon morley)

Welatên hunermendên mezin tuneye. (Alfred de musset)
Ger hunera kirina gotineke xweş hebe, hunera xweştêgihiştin û xweşguhdarîkirinê jî heye. (Epîktetos)

Tu hunermendên mezin, tu tiştên der û dora xwe mîna ku heye, nabînin: Ger wan wilo bidîtana, ew nedibûn hunermend. (O. Wîlde)

Herkes bi rêya xwe diçine buhuştê. (Fredrikê mezin)
Efûkirin, zekata biserketinê ye. (Hz. Emer)
Hilweşandina stûnekê hêsan e, huner di rastkirina stûna xwêl de ye. (Celadet Alî Bedirxan)

Divê fikr rind bê fikirîn, peyv rind bê gotin, kar rind bê kirin. (Zerdeşt)
Xebata her kesî ji bo xwe ye. Mineta tu karî tune ye. (Osman Sebrî)
Her kes mîmarê dîwarê xwe ye." (Ehmedê Xanî)
Rewşenbîr berpirsiyarê bûyeran û jiyana civakê ye. (Wedat Aydin)
Ez bê nan dikarim bijîm, lê ez nikarim bê azadî bijîm. (Seîdê Kurdî)

Ji rojê eşkeretir e ku belgeya bûyînê û mafê hemî gelan li ser vê dinyayê ziman e. (Hejar)
GOTARÊN LÎ SER GOTÎNÊN PÊŞIYAN

**Ji remzan heta gotinên pêşiyan**
**Hasan OZDEMÎR**

Nexşeya rê ya gotinên pêşiyan, hema bibêjin ji pêvejoya ku mirovahi bûye mirovahî, destpê dike. Ev destpêk, mirovê pêşî ku xuya bûye, di serî de ji bo jiyana xwe bidomîne, bi tiştеyan re têkiliya wî ya sereke ye (Serol Teber: Bingeha Lebatên me). Ji bo ku mirov vê babetê baş hîn bibe, divê mirov çav li dîroka pêşketina mirovahiyê bigerîne.

Ji bo, giyanewerekî kirdeyî, bikaribe têkeve liv û libatê, divê bi tiştan re têkeve têkiliyê. Bi kurtasî kirde tiştеya xwe, tiştе jî kirdeya xwe diafirîne.

Cûreyê giyanewerê ku bûye mirov, ji bo şertê xwe jiyanî bîne cîh; libata wî ya pêşî ji bo birçîbûna xwe çareser bike, bi tiştеyekî re dema ku ketiye têkiliyê, ew bûye hînbûna wî ya pêşî, ramana wî ya pêşî, hestê wî yên pêşî û agahiya wî ya pêşî. Piştî vê, pirsgirêkên nû; standina agahiya wî ya nû, raman û ji bo azmûnên ku qezenc kirine pêşde bibe, bi vê yekê re tovê ku jê re dibêjin "çand" çêdike.

Di demên pêvejoya jiyana mirovbûyînê de; ji komikên colî (kerî) derbasbûna civakî; her takekesek bi takekesê din re, her colek bi colê din re, her berek bi berê din re, her komek bi komên din re, ango ji bo agahiyên ku ji jiyanê pazanc kirine bidin civakan, pêwistî dîtine bi raman û hestên xwe bibin sûdewar û veguheztina ji hevdû re pêk bînin. Ev yek belkî jî bûye destpêka ragihandinê û bi vê yekê re jî ji bo agahdarî û pêzanîn bigihêje dema me bûye diyarokek bingehîn.

Ji bo pêwistiya vê ragihandinê, bi bikaranîna Remz û nîşaneyên dubareyî û sekneyî, tiştên ku hatine ser hev, veguheziye heta dema me. Ji deh hezar salan; bi resim, şan û tasvîran rêya peyamên bê hejmar peyde bûye.

Dîsa jî heman pêwistiyê, watedarbûna cureyên dengên cuda û bi awayê bikaranîna Remzan, keşfa şertê pêşketina mirovahiya ku em dibêjin "axivger" vekiriye.

Di serî de serkeftina dîtina ziman ku armancek bû, îro bûye pêkanek xweîfadekirina bê kêmasî. Bûye erka bi celebê mirov û bûye xezîneyek çandî ya mirovahiyê.

Tevlî ku jiyanê wateya xwe di ziman de dîtiye, mirovên ku li ser cur bi cur erdên dinyayê jiyane pêwistî dîtine ku wan pêzanînana bigihînin nifşên pêşiya xwe.

Vê pêwistiyê zor daye îcada mirovahî ya duyemîn. Ev jî nivîsandin e. Di destpêka nivîsê de, resim, şan û taswîr hatine bikaranîn (ev şan û taswîrana di Berî Zayînê 4000 de ji alî Sumeriyan, di hesabê çandiniyê de hatine bikaranîn û dûre bi nûjenî dom kirine.
Ji vana:

Pîktogram(nivîsa rismî),
Îdogram (nivîsa ramanî),
Nivîsa bizmarî( BZ 2900 Sumer),
Hiyeroglîf (BZ ss. 3 yemîn),
Fonogram (nivîsa dengî),
Nivîsa hiyeratîk (nivîsa bikarî),
Nivîsa demotîk (nivîsa gel),
Nivîsa çînî ( BZ 2000),
Elfabe (BZ 1000),
Tîpografî (nivîsa qepişandî),
Grafîtî (nivîsa resim-gotarî),
Kalîgrafî (rêzikên şiklî), yên sereke nin.

agiri

**Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail: agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com**

# Leşkerên DYA'ê li Kurdistanê bi cî dibin




Fermandarê Hêzên Bakurê Îraqê yê Artêşa Amerîkayê, General Anthony Cucolo, ragihand ku di çarçoveya vekişandina ji Îraqê, dê 21 hezar leşkeran li Herêma Kurdistana Federeal bi cî bikin.

Ew jî dê li navbera Îraq û Herêma Kurdistanê de bibe kordoneke ewlekariyê. General Cucolo da zanîn ku, ji ber aloziya di navbera kurd û ereban, bi taybet jî li bajarên Kerkûk û Mûsilê de dê xebatên xwe bidomînin. Wî ragihand, piştî hilbijartinên ku li gor pîlanan dê 7`ê Adarê de birêve biçin, li 7 bajarên Bakurê Îraqê, dê bêtir ji bajarên din ên Îraqê leşkerên DYA`yê hebin.

Generalê DYA`yê got: "Bajarê Kerkûkê xwediyê petroleke dewlemend e û `devera agir`e. Herweha herêma ku navenda wê Mûsil e, mîna `Xeta fayê ya ereb û kurdan` bi nav kir û armancên xwe yên li herêmê wiha diyar kir: Destekkirina tîmên jinûve avakirinê, pêşxistina bandora polîsan a li bajêr û piştî vekişîna artêşa DYA`yê, dagirtina vê valahiyê bi artêşa Îraqê. Cucolo da zanîn ku rêxistina El Qeîde ku hewl dide li Mûsilê cî bigire, li gel ku derbe xwarine jî, dikare êrîşan pêk bîne û got: "Leşkerên Amerîkî, dê di rewşa rawestanê de bin, kengî ku Îraqî bi tiştekî re bilez dernekevin, dê wê demê amade bin. Lê ez hêvî dikim ku pêdivî bi vê nemîne." **Amîda Kurd**

# Elî Kîmyayî dê bihê sêdaredan



Dadgeha bilind a tawanan li Iraqê biryar da ku Elî Hesen Mecîd (Elî Kîmyawî) li ser dosyaya Helebçe bihê sêdaredan.

Ji alîyekî din ve, wê dadgehê biryar da ku Ferhan Mutleq 10 sal û Sultan Haşim Ehmed jî 15 salan bihê zîndankirin. Li angora vê nûçeya ajansa Eswatuliraq, şandeya Herêma Kurdistanê ya bi Serokatîya Wezîrê Şehîd û Enfalbûyên Kurdistanê, Mecîd Hemed Emîn li vê dadgehkirinê amade bûn.

Li gorî vê çavkaniyê, Wezîrê Şehîdan daye xuyakirin ku piştî dosyaya Helebçe, gelek dosyayên din jî hene ku divê ew jî bigihîjin mafên xwe. Weke: Dosyaya Barzanîyan, Feylîyan, Qeladizê, Zêwe, dosyaya gundê Dekan li devera Şêxan, dosyaya Kanîya Aşiqan li Helebçe û dosyaya gundê Sûriya li Zaxo û…

Di vê dadgehkirinê de, ji bilî Elî Hesen Mecîd (Elî Kîmyawî) û Sultan Haşim Ehmed, çend kesên din ên wek Sabir Ebdulezîz Dûrî û Mutleq Salih Cibûrî jî hatin dadgehîkirin. Hêjayî gotinê ye ku Bajîrê Helebçê di 16, 03 / 1988'an de, ji aliyê hêzên Îraqê û bi serperiştiya Elî Kîmyayî, bi çekên kîmyayî hat bombebarankirin. Di encam de, bêtirî 5.000 kurd şehîd bûn.

**rizgarionline**

# Bacanên Tirkiyeyê hatin qedexe kirin



Rêveberiya Kontrola Corî ya Hikûmeta Federal a Kurdistanê, Bacanên ku ji Tirkiyê tên herêmê, bi hinceta zirardan bi tenduristiyê, qedexe kir. Rêveberê Rêveberiya Kontrola Corî ya Hikûmeta Herêma Federal a Kurdistanê, Dr. Mueyed Evdirehman Qocî derbarê Bacanên ku ji Tirkiyeyê tên herêmê, daxuyaniyek da çapemeniyê. û got ku Bacan û hilberînên bacanan ên ku ji Tirkiyeyê tên Herêma Kurdistanê, ne saxlem in û mercên zanistî têde nînin. Qocî, anî ziman ku rêvberiya wan li ser hilberînên ku ji Tirkiyeyê tên, lêkolîn kirin e û di encam de diyar bûye ku ava bacanan(Murebe) û hilberînên bacanan ku ji Tirkiyeyê tên, zirarê didin tenduristiya mirovan. Qocî wiha got: "Ji ber ku şert û mercên zanistî û tendirustiyê di bacan û hilberînên bacanan de tune, me biryar da ku hatina van hilberînan bo Herêma Kurdistanê qedexe bikin." **Welat**

# Alîkariyên Bi Milyar Yên EU Nagihîjin Kurdistanê


Svenskt bistånd når inte fram

Alîkariyên Yekîtiya Ewropayê ji bo pêşxistina deverên hejar li Tirkiyê, nagihîjin bajarên Kurdistanê. Di peryoda 2004-2012'an de, 75 Milyarên Swêdî weke alîkarî gihiştiye Enqerê. Lêkolîna ji aliyê Radyoya Swêdê (Ekot/P1) ve hatiye kirin, nîşan dide ku deverên ji awira aborî ve hejar mane, mîna Amed, Mêrdîn, Colmerg û …bêpar mane û zêde alîkarî negihîştiye wan deveran û pere mîna hercar li Enqereyê maye.

Pere bi giranî ji bo ku çandinî û rewşa gundan bihêz bike, hatiye şandin. Lê dewletê wezîfeya xwe bi cî neaniye û li ser avakirina rêkxistinên pêwîst tu gav neavêtiye. Lêkolîn nîşan dide ku bajar û gundên tirkan beşek mezin ji payê girtine, lê aliyê kurda bêpar hatiye hiştin. "Tirkiyê ji awira dîskrîmîne kirina nasname û olên ciyawaz ve, welatek naskirî ye. Divê paykirina alîkariya EU li Tikriyê di vê çarçoveyê de bê nirxandin".

wewce ye EU li ser pirsê kûr bibe, lêkolîneke bide dest pêkirin û Tirkiyê jî rexne bike. **EuroKurd News**